R: 2

**Şoreşek li bingeh de**



R: 4

**Civaka navnetewî û rewşa mafê mirov li Îranê**



R: 6

**Newrozên ku bi xwînê sor bûn**



R: 8

**Roja şehîdan**



Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 180
3'ê Nîsana 2012'an
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

## Îran hêj di pileya duyemîn a îdaman di cîhanê de ye

Rêxistina Lêborîna navnetewî di raporekê de ragehand ku Îran di sala 2011'an de, seba îdam kirina zêdetir ji 360' kesan her di pileya duyem di cîhanê de ye. Herweha di raporê de hatiye ku serbarê wan îdaman, 247' kes jî bi awayek nepenî hatine îdam kirin.

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

# Şehîd tîrojkek di dilê tarîtiyê de



10'ê Xakelêweyê roja şehîdên kurdistanê jî,îsal 65'mîn salvegera bidarvekirina Qazî Mihemed û hevalên wî li gund û bajarên curbicur ên Kurdistana Îranê de bi bilavkirina tirakt, wêne û nivîsîna diruşmên pêwendîdar bi vê rojê hate bi bîranîn.

Herweha ji aliyê PDKÎ ve jî rê û resmek hêja li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ birêve çû, ku peyama Deftera Siyasî a PDKÎ ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî ve hate xwandin, û deqê vê peyamê li rûpela 2'ê de hatiye bilavkirin. Rê û resma 10'ê Xakelêwe cuda ji Kurdistanê li dervey welat jî ji aliyê Kurdistaniyan ve hate bi bîranîn.

### Muhendis Riza Xeyatî:

## Hin caran zêdeyî meheke min xwarina gerim nedixwar, lê min nedihişt ku radyo Dengê Kurdistana Îranê bo demekê jî sar bibe



R: 9

## Sergotar

## Got û bêjên bêencam!

Selîm Zencîrî

Bernameya navikî ya pirr kêşe û bi guman a Komara Îslamî a Îranê yek ji mijarên germ û gurr di rojeva siyasî a cîhanê de ye. Pirogramek nezelal ku berevajî xwasta cîhanî her berdewame û li qonaxên dawîn û metirsîdar ên xwe de ye û heya niha çar birryarnameyên navnetewî ên mehkûmiyetê li dû xwe re anîne û têde daxwaz ji rejîma Îranê hatiye kirin ku çalakiyên navikî ên xwe bisekinîne û rastiya pirograma xwe nîşan bide. Lê berevaj, Komara Îslamî ew biryarname ret kirine û bi berdewamîdana pirogramên xwe şik û guman û nîgeraniyên navnetewî jî zêde kirine.

Li vê çarçoveyê de civaka navnetewî derfetek din jî bo rejîmê bona nîşandana niyetpakiya xwe afirandiye û qirare gera din a got û bêjên navikî li navbera girûpa 5+1 û rejîma Îranê de çend rojên din, anku li 13'ê Nîsanê de birêve biçin. Got û bêjên ku encamên wê her ji niha ve diyar in û rejîm tenê bona xapandina civaka cîhanî û kuştina demê bi qazanca xwe û pêşvebirina bernamyên xwe dipejirîne, nexa naverok û kakila vê rejîmê nîşan daye sîstemek nine ku bawerî bi diyalog û careseriyên aştiyane hebe.

Ji hêla din ve jî rejîma Îranê niha ji ber tehrîmên siyasî, aborî û malî li nav kirîzan de dest û pêyan dikute û rastî gelek astengan hatiye û dixwaze bi bidestxistina çeka navikî man û jîna xwe ku gefek mezine li ser ewlehiya hemû cîhanê, garantî bike, lewma ew got û bêj li vê demê de puanek dine bi rejîmê, serbarê wê ku encamek cuda û baştir ji yên berê nabe.

# "Mistefa Hicrî daxwazkarê herêma dijefirîn bo Kurdistana Îranê ye"

N: Gary Kent
W: Riza Fethullanijad

Gelo me pajek çarenûssaz derheq pirsa çawaniya berbirûbûna bi Îranê re wunda kiriye? Ew pirs di navbera alîgir û dijberên bombebaranê û yên ku jêve ne bergirîkirina ji Îranê, erênî ye, yan ne, di holê de ye. Hêla jî bi awayek berdewam em ji hêza xelkê Îranê di vê hewkêşeya aloz de tê negihîştine.
 Di wan dawiyane de min Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî ya PDK Îranê dît, navbirî piştî herifîna rejîma paşatiyê weke nûnerê Parlementoya Komara Îslamî hat helbijartin, lê piştî vê neçar ma rû bikr dervey welat û li Kurdistana Îraqê de akincî be.

Hicrî li ser vê bawerê ye ku di Komara Îslamî de reform nahê encamdan û hilbijartina dawî jî selmênerê vê rastiyê ye. Rejîm bo nîşandana rewayiya xwe di nav xelkê de, ji hilbijartinan mifahê werdigre. Bi her awayekê be dema ku hilbijartin di Îranê de bi şêwazek azad û dadperweran bi rêve naçe, bi xatircemî ve, ev bi xwe mînakek e bo selimandina vê ku rejîm niha jî xwediyê piştewaniya xelkê nine. Hekî Komara Îslamî piştewaniya piraniya xelkê xwe heba, wê îzna birêvebirina hilbijartinek azad di Îranê de daba.

Tevgera Kesik alîgirên xwe pitir bo xebitîn di pêxema vegerandina Komara Îslamî bo ser rêbaza despêka hatine serkara xwe han dide, bona vê ku ew tevger opozisyonek bingehî be di Îranê de. Mistefa Hicrî li ser vê bawerê ye ku ev yek bûye sedema bêhêzbûne vê tevgerê û ji kar xistina piraniya xelkê û ragirtina xwe. Faktera îsbata wê jî ev e ku piraniya xelkê Îranê ji rejîmê bêzar in û daxwaza guhertina her tiştî dikin.
Ez li ser vê bawerê me piştî afirandina givaş û pirûpagendeyek berdewam, xelkê Îranê wê bibin xelkek serfiraz û alîgirên rojavayiyan û ji rêka peywendîgirtina di gel cîhana derve, daxwaza tplvekirina demên ji dest çûyî bikin.

Hicrî herweha li ser vê bawerê ye ku sîstema Komara Îslam qelişî ye. Ev têokirasiye Firqeyî ye ku nûneratiya piraniya xelkê nake. Hicrî got ku partiya wê di gel wan rêxistin û saziyan kar dike ku nûneratiya Ereb, Belûç, Azerî û Turkên Îranê dike. Di sala 2005'an de, evan bi merema lihevhatin û hevdengî di pêxema pirsên pêwendîdar bi avakirina Îranek demokratîk, sekolar û Federal di pêşeroje de, Kongireya Netewên Îrana Federal ava kirin. Evan xebata xwe di pêxema nêzîkbûna di gel Farsan jî zêde kirine û di vî warî jî de, di du salên derbasbûyî de pêngavên binirx avêtine. pêdagiriya rojava li ser çekên navikî cihê giringîpêdanê ye.

Nîgeraniyek micid heye ku ew rejîma tiokratîk giringiyê bi hewcehiyên eqlanî ên di vî warî de ku renge li encama şerek weha de her du alî têde herin nede.

Herweha nabe mirov gefxwarinên li Îsraîlê sanahî çav lê bike. Ji vê yekê jî zêdetir Îranek teyar bi çeka navikî rîskek e ji bo pêkhatina rikeberiyek leşkerî di herêmê bi taybetî li Mîsr, Turkiye, û Erebistana Seûdî de. Wate nîgeraniyek micid heye ku rejîma Îranê bi çeka navikî teyar be, û bo



sepandina hêjmoniya xwe bi ser herêmê de zêdetir ji berê pişta teror û terorîzma navnetewî bigre. tekez kirin li ser babeta çekên etomî û hewdem basnekirin û giringîneden bi tawanên komara îslamî derheq mafên mirovan, dibe sedema vê ku xelkê Îranî wusa hizir bikin ku em giringiyê bi nadin wan.

Heya niha rêka hrî baş a derbazbûn ji rejîma Komara Îslamî di Îranê de, ji rêka deshilata xelkî ve ye. Pirsyara dawî ev e ku bi çi şêwazekê dikarin evê karî bikin. Kurdên Îranî ji dewleta me û aliyên dixwazin ku piştewanek qahîm û siyasî ji bo tevgera demokratîk a Îraniyan bin. Hêviya vê tê kirin ku kerek weha rejîma niha ber bi sînorê herifînê bibe. Lê bo têgeiştinek zêdetir, Hicrî hewcehiya bi alîkarîkirina opozisyonê bi awayek rasterast tîne ber çav. Hicrî li ser vê bawerê ye ku di egere serhildana xelkî de, avakirina penagayek parastî û herêmeke dijefirîn di kurdistana Îranê de, aliyê kim dibe alîkarek bo rêxistina pitir a hêzên xwe, bo herifandina rejîmê û avakirina Îranek demokratîk û federal. Navbirî evê tîne bîr ku di modêlek weha de, bi awayek serkevtî Kurdên Îraqê ji jînosaydê parastin û ev hêz da wan ku bikarin rêxistinek herêmî û piloralîstî û serkevtî di Îraqê de ava kin.

Di salên 1980 û 1990'an de, kurdan di Îranê de xebatek çekdarî bi piştevaniya hêza xelkê xwe, lê bi piştewaniya kêm ya civaka navnetewî xistin kar. Rejîma Îranê bi awayek hovane ev serhildana xelkî serkut kir, û bi dehan hezar ji xelkê sivîl û bi dehan hizar ji xebatkarên kurd kuştin û du kes ji rêberên berê yên PDK Îranê di xaka Ewropayê de teror kirin.

Em dibe gelek bi hişyarî ve guhê xwe bidin dengên weke Mistefa Hicrî. Di dawiyê de şoreşek li bingeh de baştirîn vebijêrk e. Em dibe niha di gel dostên xwe kar bikin.
**Çavkanî: progressonline.org.uk**

# Rê û resma 10'ê Xakelêwe, roja Şehîdên Kurdistan ê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê birêve çû

Rê û resma 10'ê Xakelêwe, roja Şehîdên Kurdistanê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê di du birrgeyan de birêve çû.

Sibêdeya roja Pêncşemî, 29'ê Adara 2012'an, rê û resmek bi boneya roja şehîdên Kurdistanê di du beşên cuda de bi awayê jêrîn birêve çû:
Di birrgeya yekem de, beşdarên rê û resmê bi pêşengiya çend girûpên rêjeya nîzamî a Pêşmergan, seredana goristana şehîdên PDK Îranê kirin û piştî xwendina du sirûdan bi navên "Ey Şehîdan" û "Merêjin bom firmêskî xem", tacegula rêz û emegdariyê ji aliyê birêz Mistefa Hicrî; Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ve li ser kêla şehîdan hat danîn.

Piştre çend şênedarek ji aliyê malbatên şehîdan ve li ser goristana şehîdan hatin çandin.

Di beşa dawî a birgeya yekemîn de, pêşangeha wêneyên şehîdan bi rûyê beşdaran hat vekirin.
Birgeya duyem li salona giştî a rê û resmên PDK Îranê bi beşdariya berêz "Mistefa Hicrî", endamên rêberî, nûnerên partî û aliyên siyasî û olî ên Kurdistanî, kadr, pêşmerge, malbatên wan û mêvanan, bi xwendina sirûda netewî a "Ey Reqîb" û ragirtina xulekek bêdengî bo canê paqij yê şehîdan destpê kir.
Piştre peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê bi boneya 10'ê Xakelêwe roja şehîdên Kurdistanê ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî ve hat pêşkêşkirin.
Sirûdek li jêr navê "Xwîna Xakelêwe" ji aliyê Korsa Kora Hunerî a partiyê ve hat xwendin.
Peyama hevpar a Yekîtiyên Jinan, Ciwanan û Xwendekaran ji aliyê birêz "Keyhan Yûsifî" Sekreterê Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ve hat xwendin.



Rê û resm bi sirûdekê bi navê "Ew Şehîdan" ji aliyê Korsa Korra Hunerî a PDK Îranê ve bidawî hat.

# Peyama Deftera Sıyasî a PDK Îranê bi boneya roja şehîdên Kurdistanê

**Hevwelatiyên xweştivî!**
**Beşdarên hêja!**

Em îro (10'ê Xakelêwe) li vir kom bûne daku rêz ji şehîdên kurdistanê bigrin û yad û bîranîna kesatiyê dîrokî û jêhat yê gelê xwe bilind rabigrîn. Yad û rola ew rêberê kêmwêne yê dîroka hevçerx a kurd ji bo heta heta wek stêrkek geş di esmanê pirr ji hêvî ê Kurdistanê de diyar û geş dimîne.

Qazî Mihemed xortê jêhat ê kurd bi teyîsandina agirê xebatê dîrokek nivîsand ku piştî zêdetir ji 6 dehsal xebatê hêj rênima û çirayê xebat û berxwedana tevgerek mafxwaz û mafdar ê gelê mafxwarî ê xwe ye. Niha bîr û hizra netewexwazî û mafperwerî îlham ji peyv, bîr û hizr, kesatî û riftarên wî rêberî werdigrin. Wate em dikarin bi şanazî ve bibêjin ku qutabxaneya Pêşewayê kurd ocaxkor nine û partiya Qazî Mihemed li salvegera 65 saliya şehîd kirina wî de tendûra xebata siyasîl û sivî herweha germ û gurr ragirtiye.
Xebata gelê kurd hevdem bû li ge serdemê rizgariya gelên bindest û rizgar bûna ji çengên faşîzmî li dawiya şerê duyem ê cîhanî de. Ew rêberê jêhatî û hişyar bi hûrbînî û berhevdana durust ji rewşa wê demê û ji ber nifûz û pêgeha civakî, siyasî û ew xweştevîbûna ku li nav xelkê de hebû, partiyek siyasî û modern pêk anî û li midehek kurt de devera Mûkiryanê dike landik û dergoşa şoreş û berxwedanê li dijî rejîma şovenîst perwer a Pehlewî. Ew liv û tevgera netewî a rêberê karîzmaye kurd, tirs û xofek mezin xiste nav dilê desthilatdarên dîktatore Tehranê û koşka dîktatoriyê hejand û ew ji xewê hişyar kirin ku gelê kurd her zîndî, li ser pêyan û heqxwaz e û teslîmbûnê jî napejirîne û heya gihîştin bi armancên xwe ku rizgariya netewî û av û xaka xwe ye, dest ji xebatê bernade û bo gihîştin bi vê armancê jî amadeye nirxa wê bide û xortên herî baş ên xwe pêşkêşî vê baregahê bike.
Her ji wê demê ve, bingeha çandî a berxwedanê û nasnameya netewî hat danîn û ev çemkane heya niha jî wek çirayek ronahîker ê riya xortên kurd bûye û nehiştiye ku balgiyê bêxemiyê bixin bin serê xwe.
Rejîma kewneperesta Pehlewî li sala 1324 heya sala 1357'ê ku dawî pê hat hertim tirs ji kurd û pirsa rewa a wê bûye û hertim li hizra pîlan û kumpiloyên qirêj de bûye. Dema ku li sala 1325'ê de êdî Pêşewa bi vê qenaetê gihîşt ku nikare pêş bi êrîşa dagîrker û hevalbendên berjewendîxwaz ên xwe bigre, hewl û xebatek zaf da ku bikare pêşiya kuştara xelkê bigre û li gel wê de ku rejîmê soza parastina canê wî dabû, lê ew bi xwe li vê baweriyê de nebû û dizanî ku dujmin ji wî derbas nabe û nemaze ewa jî dizanî ku dê bê girtin û renge li dadgehek nimayişî de bê mehkûm kirin û nemaze canê xwe jî ji dest bide.

Lê dîsan bona parastina xak û xelkê xwe û emegnasiya bi wê sonda ku li roja ragihandina Komara Kurdistanê de bi amadebûna bi hezaran kesî xwaribû ku heya dawîn demên jiyana xwe xelkê kurd bi tenê nahêle û li gel wê de jî ku pêşniyazên zaf pê hatine kirin ku canê xwe rizgar bike, lê wî tev pêşniyaz ret kirin û li Mehabadê ma û hemû berpirsatî girte stûye xwe heya ku bi vî awayî pêşiya şemendefira kuştara rejîma Pehlweî li dijî kurdan bigre û canê xwe kire goriyê xelkê xwe û soz û peymana xwe bi cih gihand. Dujmin li dadgehek nimayişî de Pêşewa û du hevalên emegnas ên wî, şehîd Ebulqasim Sedr Qazî û Mihemed Husên Seyf Qazî bi îdamê mehkûm kirin û li roja 10'ê Xakelêweya 1326'an li Çarçiraya bajarê Mehabadê û her li wî cihê ku ji aliyê Pêşewa ve Komara Kurdistanê hatibû ragihandin û sonda wefadarî bi av, xak û xelkê xwe xwaribû, bi destê tarîperestan hate li sêdaredan û şehîd bû. Diyare ew pêvajoye ji îdamê malbata Feyzulabegî jî vegirt û komek ji têkoşerên wê malbata serbilind ku nexş û rolek berçaw li rêveberiya kar û barên Komarê de hebûn, lisêdaredan, lewma bi hewce dizanim yad û bîranîna wan bilind rabigrim û rabigehînim ku bîranîna wan hertim li hizra me rêvîngên riya wan de zîndî ye.

Partiya Pêşewa wek partiyek pêşrew, şoreşvan û xebatkar li refa herî pêş a xebata netewî de ye, peyv û gotinên serokkomarê xwe kirine bi xwedîka xebatê, û ji wê demê ve heya niha ji xebatê nesekiniye û azadane li xebatê de berdewame û bi piştewaniya hêza gel rêbaza Pêşewa û hemû Şehîdên kurdistanê dirêjî dane û rejîma bikujê Pêşewa gor bi gor kirin. Herçiqas ku bi nemana wê rejîmê jî geleê wî bi xwastên rewa ên xwe negihîşt, lê tevî rejîma cihgirê Pehlweî jî ku Komara Îslamî a Îranê ye xebata xwe dom kirine û bi hezaran xortên kurd canê xwe li riya armanc û hêviyên gelê xwe gorî kirine û li nav wan xortên fîdakar û şehîd de jî, bi dehan rêber û serkirdeyên partiya Pêşewa wekî: Dr.



Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî hene ku canê xwe goriyê armancên gelê xwe kirine. Lewre dema ku mirov mêzeyî dîroka xebata pirr ji şanazî û serweriya PDK Îranê dike, bi başî û ciwanî derdikewe ku qutabiyên rêbaz û mekteba Pêşewa bi başî hest bi berpirsatiyê dikin û erkên netewî ên xwe bi cîwanî birêve dibin, bi awayekê ku êdî durûşma demokrasî û azadîxwazî bûye durûşma tak take xelkê Îranê û durûşma azadiya gelan û xwasta netewî bûye daxwazek rewa ku caran nek bi nerewa dihat dîtin, belkî bi çavek îxanetkarane bi welat jî dihat nihêrtin. Lê bi rênimayî û şîretên serokkomarê şehîd û lêzanîna partiya wî rêberî, îro hemû ew daxwazane bûne bi xwastekên rewa bo hemû gelên deverê û bi taybet gelên Îranê. Ger her bi vî awayî berdewam be ku dîrok venagere bo paş, belkî ber bi pêş ve diçe, gelek nakêşe ku hemû ew xwastekên mafxwazane bi awayekî fermî dibin bi yasa û zulm û zordarî li deverê û bi taybet li wan welatên ku kurdistan bi ser de hatiye parve kirin, bi dawî dibe û armancên wan hemû şehîdên serbilind, bi taybet şehîd û sembola netewa kurd, Pêşewa Qazî Mihemed bi encamê digihîje û vê carê rêvîngên riya wan dê biçine ser mezarê wan û tacegula serbilindî û serkeftinê li ser dabinên.

**Xelkê bişeref ên Kurdistanê!**
Rejîma Komara Îslamî dujminê azadî û mirovahiyê bi dirêjahiya dîroka xwe bi vî qasî niha îzole nebûye, givaşên navnetewî li dor pirojeya navikî a wê zêde bûne. çunku rejîm mijûlê çêkirina çeka etomî ye daku cîhanê pê bitirsîne û xwe jî pê biparêze. Herweha zext û givaşên cîhana derve li ser vê rejîmê ji ber pêpeskirina mafê mirov, pêpes kirina yasa û rêsayên cîhanî û piştewanî ji terorê zêdetir û li navxwe de jî pêgeha siyasî û civakî a wê bi tewahî daketiye û meşrûiyeta xelkî a xwe ji dest daye, nemaze hilbijartinên nimayîşî ên wê jî nikarin pêşiya bîrtîjiya xelkê bizalhatî ên Îranê û bi taybetî gelên mafxwarî bigrin û bi tewahî pişt ji rejîmê kirine, tenê çavnihêriya wê rojê dikin ku li dem û gava xwe de text û taca wê rejîmê jî weke rejîma paşatiyê biherifînin û bawêjne kirsdanka dîrokê. Bona gihîştin bi vê meremê jî yekêtî û yekrefiya gelên Îranê rola sereke dilîze. Çimku ger gelên Îranê yekgirtî bin, dikarin sîstema siyasî a pêşerojê li Îranê de guhertinên kûr û çarenivîssaz têde pêk bînin û êdî koletî û bindestiyê bo hertim ji xwe dûr bixin û rizgarî û bexteweriyê bidest bînin, lewre em bi geşbînî ve mêzeyî pêşeroja Îranê dikin.
Ger em çav ji kurdan bi giştî bikin, başûra kurdistanê serketinek berçav misoger kiriye û bona parastina wan deskevtan li hewl û tekoşîna berdewam de ye. Kurd li Îraqê li zaf biyavan de rola yekalîker dilîzin, herçend ku li gel hikûmeta nawendî tûşî kêşe û astengan dibin, lê li her hal de mesele bo paş navegere. Li rojavayê kurdistanê jî bona wê ku stûnên koşka zordariya Esed ketine lerzînê, pirsa kurd li pêşveçûnê de ye û tê çavnihêrîkirin piştî hiloşîna vê rejîmê ji bo gelê me li vê beşa kurdistanê de destkevtên baş misoger bibin.

Li bakûrê kurdistanê piştî çendîn sal xebata siyasî û çekdarî, êdî pirsa kurd li rojeva siyasî a karbidetên dewleta turk de ye. Hereket û xebata berçav a pîrozkirina sersala nû a kurdî û aliyên siyasî ên kurdî zêdetir meseleya kurd bi pêş xist, ger tiştek jinişkîveyî û deverî dernekewe pêş û baskê çekdar ê wê tevgerê jî hinekê pêdeçûnê bi helwesta xwe de bike, tê texmîn kirin ku guhertin li siyaseta Turkiyê de pêk bê û li gel aliyên siyasî û yasayî ên navxwe de bikewe diyalogê û bi vî awayî pirsa kurd ber bi çareseriyek mumkin biçe.

**Silav ji şehîdên kurdistanê**
**Silav ji malbatên birêze şehîdên Kurdistanê**
**Silav ji canê pake Pêşewa û hevalên wî**
**Silav ji gelê qehreane kurd, piştewanê hertimî ê PDKÎ**
**Silav ji hêza Pêşmerge, xebatkarê gelê kurd**
**10'ê Xakelêweya 1391 a Rojî**



## Civaka navneteweyî balê dide rewşa nebaş a mafê mirovan li Îranê



Azad Kurdî

Herçiqas çend sal bû mijara binpêkirina mafê mirovan li Îranê ji aliyê hikûmetê ve, li rojeva saziyên xwedî bandor û giring ên navneteweyî derketibû, lê hilbijartina Ehmed Şehîd wek raporterê taybet ên Konseya Mafê Mirovan a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ji bo peydeçûnkirina rewşa mafê mirovan li Îranê, carek din dilê çalakvanên mafê mirovan li wî welatî xweş kir.

Li ser pêdagirî û peydeçûna berdewam a sazî û komeleyên mafê mirovan li Îranê ku navendên xebat û çalakiyên wan li derveyî welat in û herwiha xebatên dîplomatîk ên rêxistin û partiyên siyasî û saziyên sivîl ji aliyekî din, sala borî Konseya Mafê Mirovan a Neteweyên Yekbûyî Ehmed Şehîd bo şopandina mafê mirov li Îranê wekî raporterê taybet ê NY hilbijart û erkdar kir. Navborî di sala derbasbûyî de 2 rapor pêşkêşî RNY'ê kir ku di her du raporan de, rewşa binpêkirina mafê mirovan li sernaserî Îranê nebaş û vihê nigeraniyê daye xuyakirin û nigeraniyên xwe jî eşkere kirine. Şehîd herwiha rexneyên tund ji hikûmeta Îranê girtine ku rê nade serdana wî welatî bike û pirsê ji nêzîk ve bişopîne. Vê berlêgirtinê gumanên li ser tevgerên Komara Îslamî bêhtir kirine.

Di raporên Ehmed Şehîd de, behsa binpêkirina mafê mirovan ji hemû aliyan ve hatiye kirin û di nav de perçiqandina sîstematîk a maf û azadiyên neteweyên Îranê û zext û zordariyên li ser wan gelan û kêmaniyên olî. Girtin, îşkence û darvekirina çalakvanên sivîl û hevwelatiyan, herwiha çalakvanên siyasî û parêzerên dadgehê û rojnamevanan bi hûrî ketiye rojevê. Binpêkirina mafê welatîbûnê, tengkirina berfireh a civaka sivîl, qedexekirina azadiyên civaka sivîl û demokratîk û fetisandina dengê rexnegir û cudabîran û wd aliyên din ên raporên Ehmed Şehîd bûn. Ji bo ku rapor belgedar be, bi goriyên binpêkirina mafê mirovan li îranê re hevdîtin pêk aniye û hevpeyvîn çêkiriye. Komara Îslamî ku bi başî haydarê tevgerên xwe yên serkutker û ne demokratîk e, dixwaze bi hindek hêcetan ne rewa berdewam pêvajoya protestokirin û şopandina rewşa nebaş a mafê mirovan ji aliyê saziyên navneteweyî ve wek destwerdan di nav karûbarê navxweyî wî welatî bide nîşandan. Xebatên Ehmed Şehîd mîna tometên derew û bê bingeh dihesibandin. Heta karbidestên Komara Îslamî wek reaksiyonekê hemberî rapora nû ya raporterê taybet ê NY îdea kirin ku çavkaniya wê raporê malperên partiyên dijber û opozîsyonê ye ku wan bi terorîst bi nav dikin! Di rewşekê de ku di sala borî de xalên binpêkirina mafê mirovan li Îranê li gor raporên komeleyên mafê mirovan ji 10 milyon derbas bû. Bêhtirî 600 hevwelatî hatine darvekirin, zext û givaş li ser hemû çalakvanên siyasî, sivîl, çandî û rewşenbîr û rexnegiran bêhtir bûye û dom dike. Civaka Îranê bi tevahî leşkerî û mîlîtarîze kirine.

Ji xeynî çend hevpeymanên berjewendîxwaz ên Komara Îslamî nebe di Konseya Mafê Mirovan a NY de li Jenevê, pirraniya welatên cîhanê piştgirî dan rapora dawî û ya berê jî. Her çend rapora Şehîd hemû aliyên sîstematîk ên mafê mirovan ji aliyê dewleta Îranê li ber çavan derbas nekiriye û çalakvanên mafê mirovan li Îranê û saziyên siyasî rexne û têdîtinên taybet li ser hene, lê raporterê taybet ên Konseya Mafê Mirovan da xuyakirin, ji ber ku rayedarên Komara Îslamî rê nadin wî serdana Îranê bike, nikare raporek berfireh û tevalî amade bike. Lê ev rapor ne kemilî jî têra xwe karnameya reş a Komara Îslamî di asta navneteweyî de eşkere kir.

Raporên Ehmed Şehîd ev çend jî selimand ku mafên bingehîn ên parastî û pênasekirî di qanûn û peymannameyên navneteweyî de li Îranê nayên berçavgirtin ku dema çendîn salan bû raya giştî ya cîhanê bala xwe nedidayê. Hefteya borî erkdarkirina Ehmed Şehîd ji aliyê Konseya Mafê Mirovan a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve ji bo berpirsyarî û karê pedeçûnkirina mafê mirovan li Îranê giringiya mijarê ji bo raya giştî nîşan dide.

Wisa dixuye ku êdî raya giştî ya cîhanê ji ber dosya etomî ya Komara Îslamî, qet rewşa binpêkirina mafê mirovan li Îranê ji hêla hikûmetê ve paşguh neavêje. Ji ber ku vê pêvajoyê civaka sivîl li Îranê bi tevahî lawaz kiriye û leşkerîkirin û ewlekarîkirina civakê, jiyana rojane û civakî jî xistiye xeter û metirsiyên mezin.

# Niqurçk

## Seyîd Ehmed Xatemî bêt? niqîze ken bila bêt



Ceifer Mubeşirniya

Seyîd Ehmed Xatemî got ku hicab tenê bigre û girêde nine, gerek bi dilve be û bibe çand û têkeve derûna xelkê de.

Vêca ew mabû ku Seyîd Ehmedê ser conega ji kincên xelkê biguman be, û here nav lingên xelkê de û bêhn bike û bizane ka rewş çawaye. Herweha navbirî got ku erkê me tenê avakirina axiretê nine, belkî çêkirin û darêtina bernameya jiyanê li ser erdê ye.

Weke dixuye seyîd Ehmedê ser conega ji horiyan bêxiyal bûye, lewma dixwaze horiyên Tehranê bi hicabê bipeçêve ku kes nebîne. wî got: "Hicab hukmê xwedê ye" bi gotinên şeqle peqle û teqle meqle û ez emînê namûsa xelkê me heya ku xwe vezelîne "aliyê çepê ber biniyê, şe û neynûk kîskê xenê, ramûsana ser kaniyê" vêca bêje şeytan jî milyaketek xwedê bûye û demekê em biçin bal wî.

Hey xwedê nav kiloxê te dayî, xwezî ez pişt te bam û tereşivikek dara sinciyê jî destê min de ba "hey gayê cotî".



## Xamneyî bêt? Bila destê Nesîrcan bigre û bêt

Xamneyî sala 1391'an a Rojî wek sala "berhemanîna millî û piştevanî ji sermayeya Îranî" navdêr kir.

Hucetulîslam Nesîr Nîknijad jî di nava endamên Saziya Teblîxa îslamî a parêzgeha Tehranê de got: Sala ku ji aliyê Xamineyî ve wek sala berhemanîna millî hatiye binavkirin, pirr pîroz e, û emê wê gotinê bilind binirxînin. Lê demek pêçû û di axaftina xwe de gemjeyiya Xamineyî eyan kir û got, me hewcehî bi berhemanîna hizr û zanîn û ramanên nû heye.

Way te gooooooooot!!!, walla Nesîr nizanim ku te bixwe fêm kiriye yan ne, ku we hewcehî bi aqil heye!!, ne berhemanîna sermayê. Lê wusan nabe canê min, a ku Xamneyî dixwaze, pere û xwarina sermayeya xelkê ye, a ku tu dibêjî pirsek pirr girîng e, lê ger ji bilî min kesek din bi Farisî Xamineyî tê bigîjîne, ku te çi gotiye, yan serê te yê bibe goriyê simbêlên axa, yan jî tu wê bihêy kêleka min û niqurçkên xwe ji dûr ve, teniştên wî bidî.

Lê tu ne ew kesî ku te fêm kiribe te çi got, gerek yek li pey dêla we be, û we niqîze bike û bêje we, ohooo Hêstira şemboz te bêhn berda".





Heya niha Komara Îslamî nîşan daye li ciyê ku mesajên bi riya derî ji piştеder re têne şandin bigre û li gor wan danustandinên xwe biguhere, li pişt derî dîwarek req û hişk ava dike ku tu peyam jê derbas nabin

# Dero bi te re me, piştedero guh bidê



Ebdulla Hicab

Bi hilkevta Newroza îsal, serokên welatên ji Komara Îslamî nerazî, ji wan serokkomarê DYA, serokwezîrê Berîtaniya û serokkomarê Îsraîlê mesajên pîrozbahiyê weşandin û sersala xelkê Îranê pîroz kirin. Hevdem di gel serokan, karbidestên din yên payebilnde wan welatan jî mesajên pîrozbahiya Newrozê weşandin. Xameneyî û Ehmedînijad bi awayek rasterast bersiva wan mesajan nedan, lê nerasterast di axaftinên xwe yên wê dawiyê de bersiva xwe gîhandin guhê aliyên himberanî xwe.

Şandina mesajên siyasî bi munasibeta Newrozê ev çend sale ku bûye edet, û niha hêdî hêdî wê weke kevneşopiyek siyasî cî digre. Berevajiyê kevneşopiya dîplomatîke navbera berpirsiyarên payebilinde welatan ku mesajên pîrozbahiyê ji bo hevpileyên xwe dişînin, bi rûkeşî mesajên Newrozêye serokên welatên Rojava yên xwedî bandor di siyaseta cîhanê de bi awayek rasterast ji serokên Îranê re nayê şandin. Lê ne veşartiye ku berê mesajan li serokên Îranêye.

Aliyê hevbeşe peyamên sersalêye her sê welatên ku mesajên Newrozê ji bo "xelkê" Îranê şandin ev bû ku ji aliyekê ve karbidestên Komara Îslamî ji encama siyaseta wan ya niha şiyar bikin û ji aliyek din ve xelkê asaiye Îranê xatircem bikin ku tu dijberiya wan bi berjewendiyên xelkê û welatê Îranê re nîne. Naveroka her sê mesajan ew yek digehand ku her sê welat jî dixwazin rêjîma Îranê rê û rêbaza siyaseta xwe ya derve biguhere. Îşaretên ku di wan mesajan de xuya dikirin ew bûn ku eger bê û Îran pilana xwe ya meyandina Uraniomê biguhere, wê li bin barê dorpêçên abûrî û sizayên dine navneteweyî derkeve. Tenê Îsraîliyan hinek guman di mesaja xwe da hêştibûn ku heta eger bê û Îran bi Ajansa Navneteweiye Enerjiya Amtomî (ANEA) re hevkariyê bike jî, Îsraîl baweriyê pê nake û naxwaze zextên navneteweyî li ser Îranê kêm bibin.

Bersiva rêberên Komara Îsalmî jî ev demek dirêje ku ketiye qalibek diyar û hemû salan hema di heman çarçoveyê de dubare û çendbare dibe. Bersiva wan heman bersiv û siyaseta salên pêşîne ku bi hin gef û gotinên vala û duruşmên tundutûj tê xemilandin. Bi awayekê ku herkes beriya weşandina bersiva rêjîma Îranê dikare pêşbînî bike ka ew dixwazin çi bêjin û bi çi awayî xwe ji bin barê berpirsayetiya navneteweyî bavêjin.

Heya vir, cudaiyek di mesajên îsal û yên salên pêşîne karbidestên Amerîka, Brîtaniya û Îsraîlê de ji bo Îraniyan û bersiva Îraniyan ji bo wan xuya nedikir. Lê hin nîşane hene ku pêşhat û pêvajoya ku dikare ji niha u pêve destpê bike, ji bûyer uûpêşkevtinên heya niha cuda bike. Her çend mesajên tu ji aliyan basî cudahiya rewşa îsal û ya salên pêşîn nedikir, bûyer û pêşhatên cîhan u herêma Rojhilata Navîn tu gumanê nahêlin ku rewşa niha ji ya salan cudatire.

Beriya her tiştî,îsal programa atomiye Îranê ji her demê pitir di rojeva cîhanê de ye. Komara Îslamî di gel ku mebesta xwe ya sereke ji bo meyandina Uraniyomê vedişêre, lê bi veşartî ya ji desta tê dike ji bo ku demekê ji ya din zûtir teknolojiya atomî derbasî projeya xwe ya leşkerî bike û eger çekên atomî çê neke jî, her nebe şiyana çêkirina çekên atomî bi dest xwe ve bîne. Ji navnedên pêşxistina teknolojiya navikî ku heya niha hatyine eşkere kirin, navenda Parçîn ji hemûyan pitir bi armanca leşkerî tê bikar anîn, lê ji Parçînê bi der çiyayên Alborzê potansiyela veşartina gelek pilanên veşartiye leşkeriye Komara Îslamî hene.

Weke tevawkerê xeyalên zêdexwaze Komara Îslamî, manovrên leşkerî û ceribandina roketan hê zêde ji bo Îsraîlê fukaran çê dike. Her çend Îsraîl jî dizane ku zêdegaviyên Îranê wê tu gav negîje wê astê ku Komara Îslamî bikeve xeyala bikaranîna çekên atomî li dijî Îsraîlê, lê Îranek xwediyê çekên atomî kabûsa herî mezine tenê welatê Cihû yê cîhanê, Îsraîlê ye. Îrana atomî dikare hem teknolojiya çekên tevkujiyê bide Hizbullah û hevpeymanên xwe yên din, hem jî siya Îsraîl û Amerîkayê li herêma Rojhilata Navîn birevîne.

Rewşa Sûriyê û payîza jiyana rêjîma Esed, bi wê re jî girêdayî jêrdariya bextê hêzên tundreve ku li bin siya rêjîma Baasa Sûriyê û bi alîkariya Îranê dijîn, wê pêwîstiyê zêde dike ku Amerîka û hevpeymanên wê şiyariyek cidî bidin Îranê. Gumana Amerîka ewe ku di rewşek weha aloz de, Îran ya ku ji destan bê bike heya hem hevpeymanên xwe ji wê rewşê rizgar bike, hem bela Rojava ji serê xwe dûr bixe.

Li derveyî Rojhilata Navîn, bûyera ku dikare bandorek cidî li ser rewşa herêmê û siyaseta Amerîka li hember Îranê danê, hilbijartina serokkomariya Amerîka li dawiya vê salê ye. Îran dizane ew serokkomarê ku bixwaze ji bo hilbijartina dubareye serokatiya DYA xwe bipalîve, bi zehmet xwe tûşî şerekê dike ku encam û berbilaviya wê ne diyare. Ji ber wê hindê Îran hewl dide ku di dema pêşiyê u beriya hilbijartina Amerîka xwe bigehîne astekê ku ji bo serokê nûye DYA ne mumkîn be wê demê jî meydana manovran ji Îranê tengav bike.

Di rewşek wisan de, karbidestên payebilinde Amerîka, Berîtaniya û Îsraîl bi mesajên xwe yên Newrozê ku her sê, kêm zêde weke hev û di yek çarçoveyê de bûn xwestin ji Îranê re bêjin ku êdî ji niha u pêve zêdegaviyên wê napejirînin. Ew mesaj dikarin her di heman demê de weke şansek din ji serokên rêjîma Îranê re jî bêne hesibandin.

Lê heya niha Komara Îslamî nîşan daye li ciyê ku mesajên bi riya derî ji piştеder re têne şandin bigre û li gor wan danustandinên xwe biguhere, li pişt derî dîwarek req û hişk ava dike ku tu peyam jê derbas nabin. Peyamên Newroza îsal jî şansek ji mesajên hevşêweye pêşîn pitir nînin. Ji ber ku eger Komara Îslamî guhdariya daxuyanî û daxwazên bi wî rengî bikira, niha ji mêj ve bû rewş hatibû guhertin.

Ji bo gelên Îranê jî mesajên giştiye weke mesajên ku îsal ji Waşington, Tel Aviv û London hatin, zêde mana nînin. Ji ber ku heya niha mesajên bi wî rengî ne hejmara kuştin û îdaman li Îranê kêm kiriye, ne rewşa mafê mirovan li Îranê guheriye û ne jî bûye piştevaniyek manewî an madî ji bo xebata neteweyên Îranê li dijî rêjîma Komara Îslamî.

Bi kurtî û kurmancî mesajên îsale serokên Amerîka, Îsraîl u Berîtaniaya tu wateyek ji ya salên pêşîn cudatir nebûn û karîgeriya wan jî nikare ji ya salên berê zêdetir be. Lê rewşa siyasiye herêma Rojhilata Navîn dikare wateyê bide wan mesajan. Çi wateyek, wê dema pêşiya me nîşan bide.

# Newrozên ku bi xwînê sor bûn



Şehab Xalidî

Newroz bi wateya destpêka rojek nû, û vebûna xwezayê piştî sir û seqema zivistanê, û destpêkirina jiyanek nû ye ku reh û rîşeyek hezar salî di nav xelkê herêma Rojhilata Navîn de heye, û ji aliyê gelên vê herêmê ve bi coşek mezin ve tê ê pîroz kirin. Lê ew cejin ji bo Kurdan ku bi dirêjahiya dîroka mirovahiyê li jêr zulm û zoriyê de jiyan kirine, bi wateya rizgarî, aştî û azadiyê û serkevtina bi ser zalim û sitemkaran de ye. Lê mixabin sitemkaran her di vê rojê de jî dest ji zordarî û hovîtiya bi dijî gelêKurd hilnegirtine û gellek caran li newrozê de, newroza Kurdan bi xwînê sor kirine.

Yek ji wan newrozên ku bi xwînê hatiye sorkirin, newroza Kurdên rojhilatê Kurdistanê ye. Li rojhilata Kurdistanê jî wek parçeyên din dagîrkeran her tim xwestine cejn û şadiya Kurdan bikin şîn û tazî, ku yek ji wan mînakan êrîşa hêzên rejîma Îranê bo ser xelkê Kurdistanê her di destpêka deshilata xwe de, li bajarê Sinê de bû.

Di rastî de Komara îslamiya Îranê tu derfetek ji bo tepeseriya gelê Kurd û nîşandaba kerb û kîn û dijminatiya xwe li hember gelê kurd de neveşart. Li ser û bendê newroza 1358'an û tenê pênc hefteyan piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê, rejîma taze bi deshilat gihîştî bi awayê herî hovane û bi dûr ji pirensîpên însanî, exlaqî û ayînî, kuşt û kuştarek berfireh li bajarê Sine li Kurdistana Îranê de rê xist.

Fermanderên binkeya leşkerî ya Sinê, êrîşa xelkê bo ser binkeyên jandirmirî û çekkirina vê binkeyê kirne hêcet bo êrîşek weha. Lê di rastî de di dema çekkirina binkeyên leşkerî ji aliyê xelkê ve tu kesê medenî nehatibû kuştin ku hewcehî bi dijkiryarnîşandanek weha hovane hebe.

Di heyamê çend rojan şerê derdora bajarê Sine de, kirêgirtiyên nav binkeya leşkeriya Sinê, bi top û xompare, doşke û hîlîkopteran nav bajarê Sinê kirne armanc, ku li gorî serjimêriyên ne fermî ên wê demê nêzîk bi 450 kes ji xelkê bê berevan bûne goriyê siyasetên dijî mirovî ên rayedarên rejîma Komara Îslamî a Îranê. Bi vî awayî bû ku newroza Kurdan bi xwînê sor bû. Newroza ku diviya bi rengên kesk û sor û zer û govend û dîlana xortên Kurd û şadî û xweşiya gelên Îranê hatiba neqişandin.





Mixabin ji bilî bajarê Sinê, herêmek din jî ku di destpêka newrozê de bi xwîna xortên Kurd sor bû, gundê Gêçê li herêma Urmiyê bû. Xelkê vê herêmê bi taybetî xelkê gundê Gêçê ku her tim xelkek welatperwer û şoreşger bûne, her di destpêkê de ketine ber kerb û kîna deshilatdarên rejîmê di vê herêmê de. Lewra rejîm ji derfetekê digeriya bona vê ku derbek giran ji xelkê vê herêmê bide. Lewra di 2'ê Xakelêweya 1362'an (1983) de, şahidê êrîşa herî xurt ya hêzên rejîma Îranê bo ser hemwelatiyên sivîl ên vî gundî bûn. Êrîşek ew qas hovane ku rûyê rastîn ê rejîma Xomênî her di destpêkê de nîşan da.

Mixabin di vê êrîşa ew qas hovane de 13 kes bi navên, Ehmed Moceredî kurê Mihemed, Riza Xelîlî kurê Îbrahîm, Ebdulrehîm Mistefayî kurê Rostem, Kemal Mistefazade Kurê Esed, Cergez Moceredî kurê Ehmed, Cehangîr Mihemedî kurê Ebdulla, Esed Mistefazade kurê Îsa, Heqî Seîdî kurê Elîreza, Mehmûd Hesenzade kurê Riza, Siltan Seîdî kurê Ehmed, Îdrîs Mocered kurê Ehmed, Îbrahîm Ehmedî kurê Casim, Mihemed Dîrînî kurê Omer, ku piraniya wan xelkê medenî bûn, dîsan li newrozê de hatin kuştin,û xwezaya gund bi xwîna wan hate avdan. Ji bilî vê kuştara hovane li gundê Gêçê de, hêzên rejîmê 35 kes jî rapêçî girtîgehê kirin ku li girtîgehê de bi awayên herî hovane hatin îşkence kirin ku yek ji wan bi navê Şekûr Ehmedî li jêr îşkenceyê de canê xwe ji dest da.

Bi vî awayî rejîma ku bi navê Îslamê bi ser xelkê de deshilatdariyê dike, her di destpêka deshilata xwe de bi wan kiryarên xwe nîşan da ku ew tenê û tenê olê îslamê ji xwe re dikne emraz ji bo gihîştina bi armancên xwe ên qirêj ku bêguma ew armanc jî tenê û tenê deshilatdarî û destgirtina bi ser mal û jiyan û çavkaniya serwet û sermayeya welat de ye. Lewra jî xelkê Kurdistanê ku ew qas zulm û zordarî ji destê wan celladan dîtine, qet serî ji wan re netevandine û natevînin jî, ku ew yek tê vê wateyê ku gelê Kurd bi wan helwestên xwe ên cesûrane û mêrxasane, wê text û bextê wan celladan ku li ser xwîna gelan hatiye avakirin, biherifîne û wê riha tewaya şehêdên kurd û kurdistanê şad bike.

## Dosiya terorîzma Komara Îslamî di Arjantînê de ektîv bû

**Serkomarê berê yê welatê Arjantînê seba dosiya teqîna sala 1994'an, ku di bajarê Boynêsayrês a pêtextê vê welatî û ji aliyê Komara Îslamî vê hatibp pilan kirin, bi dadgehê re hat gazî kirin.**

Karlos Menem bi tawana wergirtina bertîl û bandor xistine ser pêvajoya lêkolînan derbarê teqîna baregeha navendî ya AMIA li Boynêsayri ê hat encam dan û têde zêdetir ji 85' kuştî û 300' birîndar lê ketin, hat tometbar kirin.di vê teqînê de berpirsyarên paye bilin ên Komara Îslamî veke Xamineyî, Refsencanî, Felahiyan û mohsên Rizayî dest hene.

Eva di demekê deye ku li gor nûçeyan, yekîneya 400' ya ser bi Sipaya Quds a Komara Îslamî Ku piraniya wan mirov kujin û di bin fermana rêberê şoreşa Îalamî wate Xamineyî deye, heyamê çend heyvane di xaka Turkiyê de cihgîr bûne û sebe birêwebirina pîlanên teroristî bi dijî berjewendiyên welatên rojavayî û Cihûyên Îsraîlê hatine şandin.

Yekîneya 400'ê, rolek giring di pîlana terora sefîrê Erebistanê di Amerika de boye.

## Nirxa helawsanê di Pûşperê de digîje 50'î ji sedê

**Malpera "Baztab" di raporeke xwe de eşkere kir ku cejnaneya xelkê Îranê, zêde bûna 50 ji sedê a nirxa "erz" di Îranê de ye ku di meha Xakelêweya îsal de dest pêkiriye û wê di Tîrmeha dahatî de jî bandora xwe nîşan bide.**



Navbirî di dirêjiyê de dibêje ku hekî faza dûyem a armancdarkirina yaraneyan bê cîbicîkirin, nirxa her lîtrek Benzînê wê bibe hezar tûmen, ku ew jî zêdebûna 82 ji sedê a nirxa niha ya benzînê ye û di bihar û havîna îsal de jî çavnihêriya zêdebûna 40 ji sedê a nirxa kalayên hawirde tê kirin.

# Tu Şansek Ji Bo Mana Esed Nîne



Hemîd Muxtarî

Zêdeyî salekê ye ku xwenîşandanên nerazîbûnê li Sûriyê ji bo azadiyê berdewam in û di vê pêxemê de bi hezaran mirovên sivîl û bêtawan bûne gorî. Rejîma Beşar Esed û hevpeymanên wî jî hemû hewlên xwe didin ku vê şoreşa mezin bitemirînin, lê wan ne tenê nekariye di vê pêwedniyê de tu gavek erênî û di çarçoveya berjewendiya xwe de hilgirin, belku agirê şoreşê roj bi roj berfirehtir dibe û digîje herêmên din.

Bi awayekê ku îro rojê beşek berfireh ji bajarên Sûriyê ne li jêr kontrola hikûmeta Esed de ne, ew bajarên ku li jêr destê Esed de ne jî bi tewahî hatine milîtarîzekirin û keş û hewayek tam leşkerî li ser de zal e. Bi rastî eva ku mirov têde heyrî dimîne kuştina mirovan e. Roj nîne em nûçeya kuştina dehan kesan li Sûriyê bi destê hikûmeta Esed nebihîsîn. Li gor serjimêriyên fermî li destpêka şoreşê heta niha 9 hezar kes hatine kuştin ku li nav wan de beşek zêde jin û zarok tên *xuyakirin*.

Her eva jî bûye sedem ku niha pirsa Sûriyê hem di asta herêm û hem di asta navnetewî de bikeve rojevê û gişt cîhan li ser wê zûm kiriye.

Niha rejîma Esed di rewşek pir aloz de cih girtiye ji aliyek ve xwenîşandanên bi hezaran kesî yên xelkî rejîm tengav kiriye, ji aliyek din ve zext û givaşên navnetewî û Erebî bo ser hikûmeta Esed û xistina dorpêçan li ser Sûriyê, rejîm berbirûyê gellek kêşeyan kiriye û faktên herî girîn, dana berheqiyê bi neyarên Esed û bi fermî nasandina Şêvra Niştimanî ya Sûriyê ji aliyê beşek zêde ji welatên cîhanê û pêkhatina cudahî û înşiqaqan li nav Arteşa Esed de ye ku rewşa Esed gellek tevlîhev kiriye.

Li gor zaniyariyan zêdeyî 40 hezar kes ji çekdaran ji Arteşa Esed cuda bûne û Arteşa azad ya Sûriyê ava kirine. Eva jî bûye sedem ku Sûriye ber bi şerek navxwe bimeşe û bêşik ger destavêtinên navnetewî bi sûd û li berjewendiya gel de nebe, renge goriyên vê serhildanê gelek ji eva ku niha heye, zêdetir be û eva jî karesatek pir metirsîdar e.

Di vir de pirsek tê holê, gelo Esed heta kengê dê bikare bi vî awayî berdewam be û heta kengê hevpeymanên wî weke Çîn û Rûsiye û nemaze Rûsiye dê pişta wî bigirin û dê berdewam biryarnameyên Şêvra Ewlehiya Saziya Netewên Yekbûyî dê vêto bikin?

Li cîhana siyaset de pêwendiyên hemû welatan li ser yek bingehî dimeşe ew jî berjewndiyên hevbeş e û bi awayek "Real Politic"ane bi hevre riftar dikin û li ser vê bingehê dewlet bi hevre pêwendiyan digirin û bi hevre dibin hevpeyman û berjewendiyên hev diparêzin. Eva jî tê vê wateyê heta dema ku berjewendiyên Rûsiyê û Çîn bi Sûriye re hebin, ew dê pişta wî bigirin, lê vira faktek din heye ku tu kesek nikare xwe jê bêdeng bike ew jî pirsa mirovahiyê ye ku beriya hemû berjewendiyên din in. Rejîma Beşar Esed roj bi roj bi sedema kuştina xelkê sivîl û bêtawan berheqiya xwe li cîhana Erebî û navnetewî de ji dest dide. Eva jî bi sedema zext û givaşên raya giştî ya cîhanî ye ku bandor xistine ser welatên xwe ku li hember wan cînayetên Esed bêdeng nebin. Lewra her dewletek ku li dijî vê yekê bisekine dê pêgeha xwe li nav gel de ji dest bide.

Ger dema ku li Sûriyê serhildan çê bû, hikûmeta Esed bi awayek lojîkî ligel pirsgirika serhildayî tevbigeriyaba, û guhdariya xwestekên gelê xwe kiriba, û dest bi encamdana hinek reformên rastîn kiriba û rê daba xelk bi xwe çarenivîsa xwe diyarî bike, partiya Beas ya Sûriyê û alîgirên Esed jî renge niha di hikûmeta Sûriyê ya nû de xwedî pişkek ban, û niha hem rewş aramtir dibû û hem ew qas xelk nedihatin kuştin û pêvajoya bûyeran ber bi aliyek din dê meşiyaba. Lê Rejîma diktator ya Esed jî weke hemû rejîmên din yên dîktator li cihê vê ku rastiyên heyî yên bêşiyanbûna xwe derheq rêvebirina welat qebûl bike û îtraf bike ku li heyamê zêdeyî 40 salan de nekariye bersiva daxwazên xelkê bide, mixabin wusa difikire ku (medîneya fazile) ne û gel herdem bi wan re ne û yên ku xwenîşandan dikin, kirêgirtiyên biyaniyan in. Lewra li ser bingeha vê hêcetê dest da kuştina xelkê xwe û metodên herî tund û hov yên tepeserkirinê bikar xist. Eva jî bû sedem ku ne tenê meş netemire belku roj bi roj berfirehtir be û jimara tevlîbûna xelkê bi refa neraziyan jorde here.

Encam:

Ger rejîma Esed nekare vê rewşa aloz ya Sûriyê zû çareser bike û dest ji kuştina xelkê bernede, (ku bi raya nivîskar pir estem e ku bikare û bê şik hikûmetek din çavnihêrê Sûriyê ye û Esed îdî qet nikare rewşa Sûriyê vegerîne bo zirûfa heyî ya 12 mehan beriya niha) ew dem şans ji bo rêçareyên siyasî namîne û Rûsiye û Çîn jî îdî bi wergirtina hinek sozên weke parastina berjewendiyên xwe yên heyî li Sûriyê dê, wê pişta Esed berdin.

## Rojev



# Lîstika metirsîdar a Îranê li Îraqê de

Elî Husên Bakir
Ji Farsî: Agirî

Elî Husên Bakir di gotarek xwe a bi navê ''Lstika metirsîdar a Îranê li Îraqê de'' li rojnameya ''Today Zaman''a Turkiyê de balê dikişîne ser nifûza Îranê li Îraqê û derencamên bixeter ên wê!.

Ew li destpêkê de îşare bi gotinek Obama dike ku di axaftinek xwe de li meha Desamberê de gotibû ku leşkerên Amerîkayî dê li halekê de ji Îraqê vegerin ku ew Îraqek serbixwe, ewle û bi dewletek hilbijartiyê xelkê wî welatî cihgîr kiribin. Lê li rastî de tu yek ji wan rast û durust derneçûn. Îraq welatek lerzok û bixesare. Desthilata niştimanî a wî welatî çûye bin pirsiyarê û nikare li xwe mikûr bê.

Herwek Babekir Zêbarî dibêje Îraq heya sala 2020'an şiyana kuntirol kirina sînorên esmanî û erdî ên xwe nabe. Eva jî derfetek başe bo Îranê ku bi xurtkirina nifûza xwe û sepandina hejmûniya xwe bibe vebirê vê lîstikê.

### Riyên nifûzkirinê

Îranê li sala 2003'an de hewl û tekoşînên berdewam bona nifûzkirina li Îraqê ji riya bijardeyên siyasî ên şîe da destpê kirin.Weke partiya Eldeiwe, Meclîsa Eila ya îslamî, Rewta Sedr û ...

Heya beriya hiloşîna Sedam, asta bazerganiya her du welatan pirr kêm bû, lê niha Îran bûye mezintirîn şirîkê bazerganî ê Îraqê û asta danûstandinên wan niha gihaye nêzîk bi 10 mîlyard dolaran.

Li warê ewlehî de Spaha Quds, baskê derekî ê Spaha pasdaran bi awayek berbiçav li xaka Îraqê de lîstikên mirar ên xwe birêve dibe. Herweha Îranê li nav Artêşa niştimanî a Îraqê de jî kesên girêdayî xwe di asta bilind de cih dane.

### Armancên nû ên Îraqê

Îran heya beriya derketina hêzên Amerîkayî ji Îraqê li hewla bidestxistina çar armancên sereke da bû. Xatircem bûn ji hêz û desthilata sereke a hevalbendên xwe li Îraqê de, pêşvebirina berjewendiyên Îranê, pêkanîna yekêtî û hevalbendiyê li navbera Şîeyan li bin sîvana xwe de û herweha kûrttir kirina kirîzan ji bo Amerîkayê di Îraqê de.

Ger dewleta niha a Sûriyê biherife, Îran yek ji hevalbendên herî binirx ên xwe li deverê de ji dest dide, lewma desthilata Tehranê niha zêde balê dide armancên xwe li Îraqê. Weke: bihêzkirina sîstema pêşgîrî û berevaniya xwe li derveyî sînorên navxweyî ên Îranê û herweha nîgeraniyên nû li warê buhara Erebî de bûne sedem ku Îran hewlên xwe bona tejîkirina valahiya cihê Amerîkayê û bihêzkirina pêgeha xwe xurttir bike. Pêşgirtin ji bûna Îraqê bi welatek bihêz, serbixwe û ''Îraqek Erebî''armancek din ya Îranê ye. Çûnku dîrokê nîşan daye ku Îraqek bihêz astenga sereke li ser riya Îranê li devera Erebî de ye.

### Geşandina agirê şerrê tayifî

Mijara herî metirsîdar ev e ku siyasetên Îranê li Îraqê de renge bibe sedema şerek navxweyî nemaze deverî jî. Bi taybetî ger Malikî bixwaze bi vî awayî siyasetên Îranê li navxwe û deverê de pêşve bibe. Xasmanî niha ku lawaztir bûye, penayeêdibe ber pawankirin û qorixkirina desthilatê bi tewahî.

Malikî her rojek piştî derketina hêzên Amerîka ji Îraqê, tometa terorîstiyê xiste stûye Tariq Haşimî, cihgirê serokkomar, û herweha cihgirê xwe yê sunnî jî (Salih Mutleg) ji kar avêt. Kiryarên weha dijberî û gefek eşkere ye bi dijî suniyan, û nîşan ji xwasta avakirina hikûmetek tam Şîî li Îraqê de ye ku dikare bibe sedema pevçûn û şerê tayifeyî li Îraqê. Ew jî bûye sedem sunneyên ku heta duh federalîzm ret dikirin, îro li hember siyasteên newekhev ên Malikî de daxwazkarê piraktîzekirina federalîsmê di Îraqê de ne.

### Şerrê ku li benda Îraqê ye

Li yek cibhe û eniyekê de welatên şêwra hevkariya Kendawa Fars, bi taybetî Erebistan naxwaze ku Îraq bibe alava destê Îranê bona dijberîkirina bi wan welatan re û li eniya din de jî Nûrî Malikî ji rolê Turkiyê di Rojhilata Navîn de nîgeran e.

Xuya ye ku heya dema ku dest bidest kirina desthilatê li Îraqê de pêk neyê û Îraq nebe welatek serbixwe, bihêz û biewle, Îran dê herwusa li xurttkirina nifûz û pêgeha xwe de berdewam be û hêzên deverî weke Erebistan û Turkiye jî dê berdewam li hewla sekinandina nifûza Îranê de bin.

# Roja şehîdan



Luqman Mêhrfer

Peyva şehîd di warê zimanevanî de wateyek heye û di warê zaraveyî de wateyek din heye, di dîtingeha olî de şehîd çend cur in û her yek ji wan jî pênaseya taybet bi xwe heye û di vî warî de jî bîr û boçûnên curbicur hene.

Di warê netewî de şehîd bi kesekê tê gotin ku di pêxema bi dest ve anîna azadiyê bo netewa xwe û parastina nîştimana xwe, hazire cangorîtiyê bike û canê xwe gorî bike, lê ev pênaseya ku ji hemû pênaseyên din pitir cihê girîngîpêdanê ye, beşa herî zaf a zanayên fêqha îslamî û zanayên xeyrî îslamî serbarê hemû cudahiyên ku di navbera wan de hene li ser vê hevbîr in, ew e ku şehîd bi kesekê tê gotin ku di pêxema gehiştin bi armanceke bilind û pîroz de dixebite, ev armancên han di hizra vî kesî de bi qasekê mezin û pîroz in ku amade ye sermayeya herî mezin ya jiyanê, wate canê xwe di pêxemê de bide, jiber ku di hizra wî de bexşîna vê sermayê gelek xwezayî û asayî ye.

Em dibînin ku ev mirove xwedî taybetmendiyên bilind û hizrek jîrane ye û digel mirovên asayî cudahî heye, çonkî pêşerojê li berçav digire, dîrokek dewlemend û pir ji ezmûn û serwerî bo xwe û netewe û nîştimana xwe desteber dike ku neviyên pêşerojê şanaziyê pêve dikin. Bi van mirovan ku canê xwe fîda kirine dibejin şehîdên netewe û nîştiman. Seba vê yekê peyva şehîd, peyvek pîroze û bi wateya rêz girtin û bilind nirxandina xebat û tekoşîn û derbazbûya zelal û paqije wan e. Pile û pêgeha şehîd di nava hemû çandên şoreşgêrî ên hemû netewên azadîxwaz û rizgarîxwaz de di astek herî bilind de ye, û wek remz û sembola rizgariya netewe û nîştiman lê dinêrin, seba vê yekê emrek xwezayî ye ku her neteweyek rojek ji rojên selê ji bo bîranîn û rêz girtin ji vî mirovî diyarî bike ku di encama cangorîtiya wan de hatine rizgar kirin û yan jî di qonaxa rizgarî û serkevtinê de ne.

Sebe vê yekê partiya me bo rêz girtin ji şehîdên rêka azadiyê, gelek sale ku salvegera şehîd kirina Qazî Mihemed weke roja şehîdên Kurdistanê diyarî kiriye. Roja 10'ê Xakelêwe roja hemû şehîdên kurdistanê û roja bîranîna wan mirovan e ku bi serbilindî canê xwe di rêka bidestve anîna azadî, bextewerî û wekheviya civakî bo gelê xwe gorî kirine.

Ev roje derfetek e ku rêz ji cangorîtî, îmana qahîm û riha xebatgêrene ya hemû şehîdên xwe bigrîn û dersa cangorîtî û xwe bextkirinê ji wan fêr bin, da ku nifş bi nifş dîroka pir ji xwîn û karesata netewa xwe bibîne û bizane ku di şefeqa 10'ê Xakelêweya sala 1326'an a rojî de, Qazî Mihemedê Pêşewa û Serkomarê Kurdistanê di gel Sedrî Qazî û Seyfî Qazî di meydana Çarçira ya bajarê Mihabadê bi destê celadên Mihemed Riza Şa hatin bidarvekirin. Di roja 10'ê Xakelêwê, roja bîranîn û rêz girtin ji şehîdên rêka azadiya kurdistanê, heqe hekî




xem û kovan rû û cesteyê me dapoşe, hekî rondikên diltengiyê seba jidestdana van hemû xweşteviyan ji çavên me bên xwar, lê hewdem heq e ku em hest bi serbilindî û şanaziyê bikin hekî dilopek rondikên hêvîdarbûnê birêjin. Çonkî neteweyek ku bizane mafê wê hatiye xwarin û kesatiya heqîqî û hiqûqî a wê hatiye binpê kirin, piştre bizane ku rizgarî û derbazbûn ji rewşa han divêt bidawî were, û divêt piştqahîm û dilgerm bi hêza xwe be, û bizane ku dara azadiyê hekî bi xwînê nehêt avdan tu caran ber nagire, ev gele gelek zindî û şareza ye.

Gelê xebatkarê kurd jî şehîd bûnê wek armanc nahesbîne û ji şer û xwîn rijandinê hez nake, jiberku agehdarê encamên şer e. Serbarê vê yekê jî nikare rê bide kevneperestên zalim li ser bingeha dîktatoriya olî û mesebî û bikaranîna her hêcetk din, mafên netewî û mirovî ên wan binpê bike.

Têkoşerên rêka azadiyê, di 65'emîn salvegera şehîd kirina Pêşewa û hewalên wê de, serbarê çemandina serê rêz û hurmetê li hember hemû şehîdên bizava netewî demokratîk a gelê kurd di kurdistana Îranê de, carek din peymanê digel karwansalarê şehîdan, tevî heval û hevçeperên şehîd nû dikin ku di hemû rewşekê de û di her cih û demekê de, alaya xebatê bilind ragirin, û heya wargehên serkevtinê û bi cih anîna wan armancan ku canê xwe di pêxemê de fîda kirine, rêka wan bidomînin. Bila di roja rêzgirtin ji şehîdên xwe ên serbilind de, em dab û nerîtên ciwan ên xwe yên mirovî biparêzin.

Rêz ji malbatên şehîdan bigrin ku xweşteviyên xwe kirine goriyê baregeha azadiya netewa xwe. Gorên pîroz ên şehîdan bi gulên sor bixemilînin ku bi xwîna geş û zelal a xwe baxê kurdistanê av dane.

Hevdem digel ruha paqij a şehîdên xwe bitaybetî rêberên şehîd Pêşewa, Qasimlo û Şerefkendî soz didin ku heya gehiştin bi kopka bilind a serkevtinê û hilmijîna hewayê paqij û zelal ê azadiyê, dirêjîderek emegdar ê rêka wan bin, jiber ku domandina rêka şehîdan mezintirîn emegnasî ye bi rêbaza şehîdên me yên xweştevî.

## Binbirkirina nexwendewariyê di Îranê de 75 sal divêt

**Pisporek warê xwendinê serbarê rexne girtin ji hêdîbûna pêvajoya nehêlana nexwendewariyê di îranê de ragehand; jinavbirina nexwendewariyê di Îranê de pêdivî bi 75 salan heye.**



Muhemed Êhsan Teqîzade eşkere kir ku nêzî sê milyon kesî di Îranê de ji xwendinê paşve mane û tenê 250 hezar kes ji xwendina ji rêya dûr ve mifahê distînin.

Navbirî got; li gor serjimêriya sala 1385'an, 9 milyon û 800 hezar kes di Îranê de nexwendewar in û li gor rapora Rêxistina Lêgerînê ( bazresiyê), bi vî awayî 55 sal dixwaze heya ku nexwendevanî bihê binbir kirin.

## %37 jin û %41 mêr di Îranê de hicabê naparêzin

**Pilanên ewlehiya exlaqî di şeqaman de, riftarên hêzên ewlehiyê di gel binav bê hicaban, û cezakirina wan ji aliyê hêzên pêwendîdar ve, nekarîne ku jinên Îranî neçar bi birêvebirina hicaba îslamî bikin.**



Mecîd Ebherî, riftarnasê civakî di vê derheqê de ragehand ku eva 32 sal in ku 26 binyat bi xerckirina hezîneyek zaf di warê hicabê de dixebitin, lê % 37 ji jinan û 41% ji mêran hicabê naparêzin.

# Muhendis Riza Xeyatî: Min 35 bêsîmên cihgir û 200 bêsîmên gerok çêkirin û belav kirin û rejîm bi wî karî ketibû wehşet û tengasiyan û digot ku Îsraîlê ew tenzîmat birê xistiye

## Muhendis Riza Xeyatî, Pêşmergeyê Azerîziman ê PDK Îranê di hevpeyvînek taybetî bi Agirî re

**kewêzer**

Mêvanê vê carê ê Agirî kadroyê kevnar ê partiyê hêja muhendis Riza Xeyatî ye ku di seredana me pêre perde li ser beşek ji jiyana xwe û serpêhatiyên xwe avêt û bi vî awayî ji me re axivî.

Ez di sala 1934'an, li bajarê Xoy ser bi Kurdistana Îranê di malbatek Azerî de hatime dinê. Qonaxa seretayî û navendî a xwendinê min her li bajarê Xoyê qedand. Piştre ez bo dewreyên hînbûna kar û barên fennî bo Tehranê hatim şandin û ez bûm efserê kar û barê fennî ê Erteşa wê demê a rejîma Şah.

Piştre ez bo bajarê Mehabadê hatim veguhastin. Berî şoreşa 1979'an a gelên Îranê min li Mehabadê karê xwe didomand. Wê demê min navê PDK Îranê û nemir Dr. Qasimlo jî bihîstibû. Li wir ez tevî hevwelatiyek Mehabadî bûm heval û wî Dr. Qasimlo bi min da naskirin. Rewşa han berdewam bû heya şoreşa gelên Îranê li sala 1979'an. Rojekê hevalê min li deriyê mala min kuta û ez çûm berderî, min dît ku hevalê mine û got ku Dr. Qasimlo hatiye û dixwaze te bibîne. Ez çûm xizmeta Dr. Qasimlo û piştî pirsîna rewşa hevdu, Dr. Qasimlo got ku padigana Mehabadê hatiye girtin û di destê xelkê de ye, lê hin alavên kar û barên fennî hewce ne ku divê tu ji me re berhev bikî. Ez jî wê demê ku efserê dewletê bûm, hemû tiştên hewce min ji padiganê derxistin û radestî Dr. Qasimlo kirin.

Paşan rejîma Îslamî a Îranê êrîş kire ser Kurdistanê û padigan ji destê xelkê derxist. Dr. Qasimlo kerem kir ku me hewcehî bi radyoyekê heye. Xweş tê bîra min wê demê Dr. Qasimlo û kek Mistefa Hicrî li devera "Bagirdan" a Mehabadê daxwaz ji min kirin ku ez radyoyekê çêbikim. Min bi wan alavan ji PDK Îranê re radyoyek ava kir ku bi axaftina Dr. Qasimlo "Radyo Dengê Kurdistana Îranê" dest bi karê xwe kir û yekem bêjerê wê radyoyê jî birêz Mistefa Hicrî bû.



Hingê ez endamê partiyê bûm, Dr. Qasimlo dîsan daxwaz kir ku me hewcehî bi pêwendiyên rêk û pêk tevî her derê heye. Min dest avêtê û li midehek kêm de min 35 bêsîmên cihgir û 200 bêsîmên gerok çêkirin û belav kirin. Li rastî de rejîm bi wî karî ketibû wehşet û tengasiyê û digot ku Îsraîlê ew tenzîmate birê xistiye. Piştî wê berdewam radyoya me diket ber êrîşên rejîma Îranê û hertim li jêr topbaranan de bû û çendîn pêşmerge ji bo parastina vê radyoyê şehîd ketin. Carekê jî kek Mistefa Hicrî ji karesatek mezin derbas bû. Li rastî de derbasbûna wî muicize bû çimku me hêviyên xwe jêre ji dest dabûn ku ew ji wê bûyerê rizgar bibe.

Radyo Dengê Kurdistana Îranê heya niha 18 caran cihê xwe guhertiye ku hemû jî li jêr givaşên rejîmê de bûne, lê ez dîsan bi moralek bilind bi vê radyoyê re bûme, heya niha ku dawiya temenê min e, 33 sal e di vê radyoyê de kar dikim û tucar navestim.

Min îman bi karê xwe heye, çimku armancên min hene û PDK Îranê dê min bigîjîne wan armancan ku demokrasî û mafên netewan e. Ger wa neba di dema şoreşa gelên Îranê de her efserek rejîma Şah dikarî bi riya "UN" ê, derbasî derveyî welat bibe û dirêjî bi jiyana xwe bide, lê min ev yek nekir. Ez kesek im ku dema karekê destpê bikim, gerek bigîjînim encamê, û soza ku min ji Dr. Qasimlo re dabû, gerek ez bixim piratîkê. Dema ku ez amade bûm karê PDK Îranê bikim, Dr. Qasimlo gote min ku "me hewcehî bi hebûna te heye, tu soz didî ku bimînî?" min got: "Ezê bimînim" û her wa jî bû, tevî gişt pirsgirêkan ez mam. Diyare tenê ez nebûm, xincî ên ku şehîd bûne yan derkevtine derveyî welat, ez û mamosta "Çeko Rehîmî" û birêz "Şaho Husênî" bûn ku heya niha jî karê xwe di partiyê de berdewam dikin.




Pisporiya min di karên elekteronîkî de ye, lewma em kêmtir tûşî pirsgirêkên teknîkî dibûn û her derek ku me radyo lê dadina, min weşana demkî amade dikir ku ji bo rojekê jî dengê Kurdistana Îranê ji guhê xelkê neveqete. Bi taybetî di dema xebata çekdarî de ku şerr hebû, parazît li ser radyoya me pirr bû, lewma em neçar man ku ferekansên xwe zêde bikin. Min ferekansên radyoyê kirin 3 û li ser "41 metir, 60 metir û 75 metrî" me radyo belav kir ku bibû sedema wehşeta rejîmê û cihê dilxweşiya gelê Kurd û azadîxwazan ku dengê radyoyê tucar nedihat fetisandin.

Karên min ên teknîkê bandorên mezin hebûn, ger ew remzên ku min di radyoyê de bikar tînan neban, di dema xebata çekdarî de şehîdên me dê zêdetir biban.

Ji bo hurmetgirtin ji karê min jî, di dirêjiya wan 33 salan de Sekreterên Giştî ên PDK Îranê hertim bi min re bûne û hertim piştevanê min bûne. Dr. Qasimlo gote min ku ger em bigîjin serkevtinê, emê te weke "Jenral" bidin naskirin, û niha jî ez ji aliyê birêz "Mistefa Hicrî" Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ve wek Şêvirmendê Sekreter hatime diyarîkirin.

Kar û xebata ku ji mirovahî, demokrasî û mafên netewan re ji destê me hatî eva bû ku min jî mil dan ber wî karî. Her seba vê yekê, rejîmê hewil da ku sitûyê min xwar bike û tesîrê ji min bike, "hevjiya min girtin û xistin girtîgehê û wê di girtîgeha rejîmê de canê xwe ji dest da, lê ez sitûxwarê rejîmê nebûm". Çimku di xebatê de gerek nexweşî, pirsgirêk û zehmetiyên wê bi dil û can bihên qebûl kirin, ger wa nebe xebat nikare bidome.

Hin caran pêtirî mehekê min xwarina gerim nedixwar, lê min nedihişt ku radyoya Dengê Kurdistana Îranê bo demekê jî sar bibe. Di warê jiyana min de jî birastî ez dixwazim bi vijdanek rihet bijîm û hest bikim ku ez tiştek dikim û xizmetek min ji xelkê re heye. Bi bawera min her rojek ji temenê mirov derbas dibe, gerek yan tiştekê hîn bibe, yan jî kes yan kesaneka hînî tiştekê bike. Nabe wa be ku îro derbas bû, û sibê jî wê bê.

Niha ez di dawiya temenê xwe de jî bi şanazî ve dinêrim xebata xwe û tesîra xebata min jî pirr bûye û herweha li ser malbata min bixwe jî ku niha kurek min bi hevjiya xwe ve pêşmergeyên PDK Îranê ne, û ez bi wan şanaz im û ewê ji min baştir û pêtir bikarin xizmetê bi vê partiyê bikin û ew her du jî di karên xwe de pirr serkevtî ne.

Eva ku ji her tiştekê pêtir min azar dide, ew kes in ku ji aliyê rejîmê ve bo nava partiyê dihên şandin û bi awayên cur bi cur dixwazin derbê ji partiyê bidin, ew "bi nav mirov" min azar didin û bi bawera min gerek ew di civakê de bihên avêtin. Daxwaza min ji ciwanan ev e ku berî ku rû li PDK Îranê bikin, bixwînin û bifikirin, û bizanin ku ji bo çi tevlî refên partiyê dibin.

**Hin caran pêtirî mehekê min xwarina gerim nedixwar, lê min nedihişt ku radyoya Dengê Kurdistana Îranê bo demekê jî sar bibe**

# Bajarê Xoy



Li ser biryara Simkoyê Şikak di sala 1912'an li bajarê Xoyê de yekemîn xwendingeha Kurdî hat damezirandin. Li rastî de Xoy, di dirêjahiya dîrokê de cih û wargehê Neteweya Kurd bûye û xortên Kurd li wî bajarî ji bo azadî û serbestiya xwe zaf hewil dane.



Mecîd Cinîkanlû

Deşta Xoyê bi gewahiya wan hemû belgeyên dîrokî ku ji 2700 salî berî niha ve dest ketine, berdewam yek ji wan herêmên kurdistanê bûye ku aloziyekî zaf bi xwe ve dîtiye. Ev bajar bi sedema hebûna çiyayê Evrîn, yek ji bajarên herî xweşik ê kurdistanê ye. Piştî herêma qerax behera Xezerê di Îranê de, pileya duyemîn a baranbarînê heye.

Li ser Peyva Xoyê, û bingeha vê peyvê çendîn bîr û ra hene. Dr. Mihemedemîn Riyahî, di pirtûka xwe de (Dîroka Xoyê) dibêje: "Ew nave renge beşa dawîn ya bajarê Ûlxo be, û nêzîk bi 2700 sal berî niha Madan ew der ava kirin, yan beşa dawî ya navê Sardorî Xurd e, ku navê kelekê ye ku yek ji paşayên Haldî Arartu li rex bajar de ava kiribûn. Lê para zaf ya lêkolînvanan ji wan Dr.

Ebas Zeryab, li ser vê bawerê ye ku navê xoyê peyvekî Kurdî ye ku bi sebebê hebûna zaf girên Xwê ku li nava bajar û di derveyî bajar de hene, ev nave li ser hatiye danîn.

Bi taybetî di dema şoreşa kurdî da, ku Xoy gelek caran navenda şoreşa bûye, hikumetê hewil daye da ku Azeriyan li bajar da bicih bike û ji encama fîşara rijêmê di qonaxên dîrokî da, kurd ku xwediyê vî bajarî bûne, berê xwe dane gundên derdorê.

Dîroka bajarê Xoyê vedigere bo serdemê Împiratoriya Mad, ew bajar nêzîk çiyayên Evrîn û li deştê da hatiye avakirin, navê çiyayê Evrîn, wate cihê bi evir hatiye wergirtin. Gelek dîrokzan li ser vê bawerê ne ku ev nav her ji serdemê Someriyan da hatibe danan. Ji ber çiya û ax û hewayek xweş, bajarê Xoyê, (xwê) yek ji herêmên herî xweş yê rojihelata Kurdistan û Îranê ye. Yek ji taybetmendiyên çiyayê Evrîn ew e ku her dem bûye cihê şer û berxwedana milletê kurd dijî deselata Farisan, û ji ber hindê jî cihek baş bûye bo jiyanê.

Li serdemê (kerîm Xanê Zend) ku xwe kurd bûye, giringiyeka mezin bi vî bajarî hatiye dan. Ew bajar di wê demê da li ser destê eşîreta Dinbilî (eşîretek kurd e) û serokê wê Ehmed Xan û Husên xan hatiye nûjen kirin û gelek cihên taybet û bazar têda hatine çêkirin. Di serdemê hikûmeta Qacariyan li Îranê her bajarî naveke taybet hebû, navê Xoyê jî (dar alsefa) bû. Di serdema Ebas Mîrza û serdarê xalê wî de, gelek pêşveçûnên mezin li bajarê xoyê dirust bûn. Piştî Ebas Mîrza jî kurê wî deselatdariya wî bajêrî wergirt. Wate kurd her dem hikumdarên xwê bûne. Rewşa bajarê Xoyê (xwê) ji layê dîrokî û abûrî bûye egerek ku ev bajar bibe yek ji bajarên giring ên rojhilata Kurdistan û Îranê.

Avakirina bajarê xoyê cihê stratêjîk ê bajarê Xoyê li warê coxrafî da yek ji egerên serekî bûye ku her dem dewletan hewil dane ku vê herêmê bêxne bin kontirola xwe de, ji ber hindê jî cihek taybet hebûye.

Hebûna av û axek gelek baş bûye egera hindê da ku xelik ji cihên din ber bi vê herêmê ve bên, û li wir nîştecî bin, û Dinbiliyan ev bajar kire bajareke mezin û xweş. Li 50 salên dawiyê da ji ber pêşveçûnên teknolojiyê xelik zêdetir ber bi bajaran ve çûn, û jimara akinciyên bajaran zêdetir lê hat. Xoyê jî yek ji van bajaran bûye ku jimara akinciyên wê zêde bûye û ji ber hindê jî bajar mezntir bûye. Bajarê Xoyê 141 kîlometir ji bajarê Urmiyê dûr e.

Li ser biryara Simkoyê Şikak li sala 1912'an li bajarê Xoyê yekemîn xwendingeha Kurdî hat damezirandîn.
Li rastî de Xoy, li dirêjahiya dîrokê de cih û wargehê Neteweya Kurd bûye û xortên Kurd li wî bajarî ji bo azadî û serbestiya xwe zaf hewil dane.

Her wisa li bajarê Xoyê gelek asewarên Kevin hene ku piraniya wan girêdayî bi neteweya kurd in. Pira Xatûn, Hemama Mihemed beg, kela Xoyê, Mizgewta Mitelib xan û...hwd hemû bas ji xebat û kurdistanî bûna vê herêmê dikin.





Xamineyî rêberê nizama Îranê di dema hevdîtina bi Receb Teyib Erdoxan re
"**Emê dijî her gelaleyekê derheq rewşa Sûriyê bisekinin ku Amerîka pêşniyar bike**".




Kak Es'ed Ehmedî endamê Komîteya Nawendî a PDKÎ axavtina Xamineyî weha şirove dike:
"Eva ku rejîma Îranê dijayetiya her terze gelale û helwestek navnetewî bi dijî Rejîma Sûriyê dike, çend sedemên xwe hene.

Yekem eva ku Sûriye dostek sitratejîk e ji bo Îranê, çi di warê îdeolojîk de, çi di warê têkiliyên di navbera girûpên terorîstî ên wek Hizbullah û Hemasê ku riya hatûçûna mezine berpirsyarên Îranê û wan girûpan e ji bo kar û kiryarên terorîstî. Min jêve ye sedema sereke ya nehiloşîna rejîma Sûriyê tenê dijayetiya Îranê li hember cîhanê nine, belkî nebûna yekdengiyek micid bi dijî rejîma Sûriyê û Beşar Esed di asta navdewletî û di nav Ereban de ye.
Bitaybetî dijayetiya Çîn û Rûsiyê bi dijî her pilanekê ye ku bi dijî Sûriyê were pesend kirin.



Fayir Sitîn balyozê Amerîka li Yemenê de:
"**Îran ji şorişiyên Şîe û cudaxwazên başûra Yemenê piştevaniyê dike. Herweha Hizbullaha Lubnan û Hemas jî ji wan hewildanên Îranê piştevaniyê dikin**".

Navbirî herweha axavtina balyozê Amerîkayê weha şirove dike:
" Siyaseta rejîma Îranê her di destpêkê de ew bû ku li her ciheke cîhanê de, tevgereke bi lome hebe, û ew tevger ji kêmaniyek herî kêm ya Şîe jî pêk hatibe, rast bi dijî deshilatê ji aliyê Îranê ve hatine handan û heta piştevanîkirin jî, wek Çiçin li Rûsiyê, Bosnî û Hêrzegovîn li Yugislaviyê, û Behrîn li kendavê.
Şîeyên Hosî ên Yemenê jî yek ji wan girûpan e, ku ji aliyekê ve bi dijî rejîma Yemenê û ji aliyek din ve jî wek cîraneke Erebistana Seûdî ku her du rejîmên Îslamî ên wehabî ne, Îran alîkariya wan dike bi dijî deshilata wan welatan, bo tevdanîkariyan û karên terorîstî".

Molewî Ebdulhemîd, Pêşnimêjê sunniyan li Zahidanê: "**Peyrewên mesebê Sunî, ne tenê mefê xwandina nimêjên cemaet û nimêjên eydê tuninin, heya nikarin nimêjên rojane jî bi hevre wek cemaet bixwînin, eva jî serbarê vê ye ku li esla 12'ê a yasaya bingehîn de bas ji azadiya mesebên din kiriye**".



**Kak Selam Îsmaîlpûr Şêvirmendê Komîteya Nawendî a PDKÎ axavtina Molewî Ebdulhemîd weha şirove dike:**

"Di rastî de ew esil nikare naveroka Yasaya Bingehîn veşêre ku li pêşekî û esla 12'ê a yasayê de mesebê Şîe a dozde îmamî wek mesebê fermî û ên din nefermî radigehîne. Bi vê pêkê tenê mesebê fermî dikare geşe bike û dikarin propagendeyê jêre bikin. Bi vê pêkê ku şiroveya yasaya bingehîn li stûyê feqîhên Şêvra Nobedar e, ku hemû jî ser bi mesebê fermî ne, tenê ew dikarin wate û çarçoveya esla 12'ê û tewaya eslên din pênase bikin, û eva ew in ku dibe diyarî bikin ku yasa çawan were cîbicî kirin".



Selam Îsmaîlpûr

Hîlarî Kilînton wezîra karê derve a Amerîkayê:
"**Fitwaya Xamineyî derbarê herambûna berhemanîna Çekên nakikî divêt di piratîk de were îsbat kirin, da ku civaka cîhanî ji aştîxwazbûna programa nakikî ya wan xatircem bin**".

**Navbirî herweha axavtina Hilarî Kilînton jî weha şirove dike:**
"Yek ji kêmasiyên têgihîştina rojavayiyan ji siyasetên rejîma Îranê nasnekirina bingehên fikrî û îdeolojîkî ên rejîma Îranê ye. Bo mînak "teqye" wate veşartina rastiyan bi sedema meslehetê ve, yek ji şêwazên Komara Îslamî ji bo xapandina civaka navnetewî ye ku di fiqha siyasî a Şîe de wek bingeh ji bo dîn hatiye wesif kirin.
Lewra bi vê pêkê gellek asayî ye ku Xamineyî bo parastina mesleheta nizama xwe teqyê bike, û her ji niha de bombeya etom heram ragehîne, û di hemen dem de bi awayek weşartî kar bo berhemanîna bombeya nakikî bike û di demek din de bi fitwayek din bombeya etomî wek erkek ayînî bihesibîne. Herweha li gorî esla Îctihadê, rêberiya piştî Xamineyî dikare fitwayek cuda jî der bike, û fitwayek ku niha hatibe dan nikare gerentiyek be ji bo pêşgîrî ji berhemanîna bombeya nakikî ".

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com





## Gotina ''jinên Nîncakar ên Îranî qatil in''çalakiyên ''Roytêrz''ê da sekinandin



**Desteyek ji jinên Nîncakar ên Îranî, seba binavkirina wan weke bikuj, doz li dijî nûçegehaniya Roytêrz a Berîtanî vekirin, lewma wezareta ferheng û îrşada îslamî çalakiyên wê di Îranê de da helawîstin.**

Di rapora meha derbazbûyî ya Roytêrzê de hatiye ku, ev keçên Îranî ku di bajarê Kerecê da perwerdehiya sporên rezmî dibîbin weke mirovkujan in, herweha Îran seba perwerdekirina zêdetir ji sê hezar Nîncakaran bo bikaranîna wan di karên terorîstî de tawanbar kir, û ew bi tehlûke da nasîn.

## Serokê CIA piştgiriya avakirina dewleta Kurdî dike

**Serokê CIA di serdana xwe ya Tirkiyê de, daxwaz ji rayedarên Tirk kiriye ku piştgiriya avakirina dewleta Kurdî bikin.**

Serokê CIA "" di dema serdana xwe ya Enqerê de, daxwaz ji deshilata Tirkiyê kir ku piştgiriya damezrandina dewleta Kurdî li Kurdistana başûr de bikin.



"David Petraeus" ragehandiye ku hikûmeta nawendî li Îraqê de, zorê li Kurdan dike. Hûn bi Kurdan re bibin dost û ji çavkaniyên Mûsil û Kerkûkê jî mifahê bistînin.

**Avesta**

## Wênegirek biyanî: Ez nerehet im, ji ber ku wêneya herî xirap ya Ehmedînijad min girtiye!!



Wênegirek bîhanî, wêneyên herî kirêt û xirap ên xwe pêşkeşî rojnameya Gardiyan kir û wêneyê serkomarê hikûmeta Îranê pileya yekemîn ya wêneyên salê bi dest xist.

Rojnameya Gardiyan daxwaz ji tewaya wênegiran kiribû ku wêneyên herî kirêt û nehez ên xwe ji vê rojnameyê re bişînin, ku wêneyê Ehmedînijad jî di nav berhemên wênegirekî biyanî de bû.

Wî wênegirî ragehand ku ew wêneya di sala 2009'an di dema ku Ehmedînijad li korra giştî a NY de diaxivî, girtiye.
Wî ragehand ku ew wêneya, wêneya herî kirêt e ku heya niha min girtiye.

